Bidestveanîna mafên neteweî yên gelê kurd
di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (243) 06-12-2014 Buha (150) Tûmen



## Peyama birêz Mistefa Hicrî bo birêz Mihemed Hacî Mehmûd bi hinceta şehîdbûna kurê wî

Dom: 2

## Xelafeta Îslamî biçûk dibe




Di çend rojên derbazbûyî de hate selimandin ku hevalbendiya navdewletî li dijî "Dewleta Îslamî li Îraq û Şamê" naskirî bi DAÎŞ'ê, ne tenê kariye ku rê li geşekirin û pêşveçûna zêdetir ya vê rêxistinê bigire, belkî bûye sedema vê ku hejmarek zaf ji hêzên vê rêxistina terorîstî, di eniyên curbicur ên şer de bêne Kuştin û bi giştî bikeve rewşa berevaniyê de.

Malpera "Êşpîgêl Anlayn" ya Almanî bi liberçavgirtina pêvajoya şerê li dijî DAÎŞ'ê ragehand ku, lihevkirin û parvekirina kar a navdewletî li dijî rêxistina terorîstî ya DAÎŞ'ê, bi başî karê xwe kir û serkevtî bû, û heya niha kariye ku li parêzgehên Diyale û Selahedînê paşekêşê bi DAÎŞ'ê bike, û herweha roj bi roj jî, hejmara dewletên beşdar di vê hevalbendiyê de jî zêdetir dibe.

Eva di demekê de ye ku Ebûbekir Bexdadî, xelîfeyê Dewleta Îslamî pêştir ragehandibû ku emê bi şanazî ve, "Dewleta Xwedê" berfirehtir bikin, nek biçûktir.

"Êşpîgêl Anlayn"ê herweha berxwedana gelê Kurd li bajarê Kobanê bilind dinirxîne, û vê berxwedanê weke mu'cîzeyekê dide nasandin.

"Me di malekê de çavnihêriya Dr. Qaimlo dikir, ji nişkê ve televizyonê nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo belav kir...." .

8


Birêz Mîro Elyar

Mirovên şoreşger û erkên wan di qonaxên dijwar yên xebatê de

3



Nakokiyên di navbera Îran û Pakistanê, û pirsa DAÎŞ'ê

5



Berdewamiya bêrêzî û sivikatiya pilandarêtî ya li dijî neteweya Kurd li Îranê

6



Pêvajoya çareseriyê



7

# Peyama birêz Mistefa Hicrî bo birêz Mihemed Hacî Mehmûd bi hinceta şehîdbûna kurê wî



Kurdistanmedia: Sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a kurdistana Îranê, bi boneya şehîdbûna kurê Mihemed Hacî Mehmûd, sekreterê giştî yê Partiya Sosyalîst Demokrat a kurdistanê, peyameke sersaxiyê jêre şand.

Deqa peyamê, bi vî awayê ye:

Birayê rêzdar/ Kakê Mihemed Hacî Mehmûd
Silavên germ!
Nûçeya şehîdbûna kekê Eta kurê te yê hêja û endamê Encumena Serkirdayetiya Partiya Sosyalîst Demokrat a kurdistanê di eniya şer li dijî terorîstan û dijminên gelê me, cihê xem û dilêşiya hemû aliyekî ye.
Bi vê boneyê ve, em serxweşiya xwe li te û serkirdayetiya PSDK, û hemû andamên malbata we dikin, û xwe di xem û kovana we de bi beşdar dizanin.
Di vê bûyera bi jan û dilêş de, hêviya me sebra zêdetir bo we û malbata rêzdar ya we ye.
Riha şehîd Eta û hemû şehîdên riya rizgariya Kurdistanê şad be.
Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê

**Sekreterê giştî**
**Misfeta Hicrî**
**27.11.2014**
**06.09.1393**

# Şandeke PDKÎ di rêûresma serxweşiya Eta Mihemed Hacî Mehmûd de beşdarî kir



**Kurdistanmedia: Şandeke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li rêûresma serxweşiya Eta Mihemed Hacî Mehmûd di bajarê Silêmaniym de beşdarî kir.**

Li gorî rapora malpera Kurdistanmedia, roja Pênçşemî 27'ê Çiriya Paşîn a 2014'an, heyeteke PDKÎ bi serperestiya Mihemed Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di rêûresma serxweşiya Eta Mihemed Hacî Mehmûd endamê Serkirdayetiya PSDK li bajarê Silêmaniyê de beşdarî kir.
Di vê pêwendiyê de, Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a kurdistana Îranê, bi boneya şehîdbûna kurê Mihemed Hacî Mehmûd, sekreterê giştî yê Partiya Susyalîst Demokrat a kurdistanê, peyameke sersaxiyê jêre şand.
Eta Mihemed Hacî Mehmûd di gundekî derdora Kerkûkê de, di şerê li dijî DAÎŞ'ê de şehîd bû.

# Rêûresmek ji bo bîranîna Heme Reşîd Xanê Bane bi rêve çû



**Kurdistanmedia: Roja 04.12.2014 (13.09.1393)'an, Yad û bîranîna Heme Reşîdxanê Bane ji aliyê "Birêveberiya çalakên wêjeyî ya bajarê Silêmaniyê" bi amadebûna cemawereke zaf ji ronakbîr û nûnerên partên siyasî û serokhoz û kesên olî yên rojhelat û başûra kurdistanê, li hola Sadat li bajarê Silêmaniyê bi rêve çû, û birêz Mihemed Sahibî nûnerê PDKÎ beşdarî vê rêûresmê bû.**

Ev bîranîn bi merema 40'emîn salvegera koça dawiyê ya Heme Reşîdxanê Bane serkirdeyê bizava kurd li rojhelata Kurdistanê hatibû rêkxistin.

Di vê bîranînê de vekolînek akadîmîk hate pêşkêşkirin, ku bas ji dîrok, siyaset, rol û bizava Heme Reşîdxanê Bane li bizava rizgarîxwaziya Kurd de kiribû.

## Sergotar

# Îran û Tirkiye, û DAÎŞ

Şehab Xalidî

Piştî vê ku AKP'ê di Tirkiyê de deshilat bi dest ve girt, rûpeleke nû di têkiliyên siyasî û tîcarî ên navbera Îran û Tirkiyê de hate vekirin. Rejîma Îranê bi sedema vê ku têkiliyên wê bi welatên Ewropayî re, li ser pirsa navikî gellek lawaz bibû, lewra xwe nêzî Tirkiyê kir, û Tirkiye bû bi bazareke herî germ ji bo şandina neft û gaza Îranê, û Îran jî bû bzarek germ bo kalayên Tirkiyê.

Ji aliyekî din ve hemû demekê hem Tirkiye û hem jî Îranê, li ser bilavkirina modêl û şêweya deshilatdariya xwe di herêmê de, rikeberî hebûne.

Ew pêwendiya pirr ji evraz û nişîv a di navbera her du welatan de piştî gihîştina pêla serhildanên naskirî bi Buhara Erebî bo welatê Sûriyê, ber bi sarbûnê ve çû. Lê di van rojên dawiyê de, ew pêwendî ew qas sar bûne, ku Îran bi eşkere di dezgehên xwe yên ragehandinê de bas jî piştgiriya Tirkiyê ji DAÎŞ'ê dike.

Pêdagiriya herî zêde ya Tirkiyê jî li ser herifandina deshilata Beşar Esed çend qat zêdetir Îran nîgeran kiriye. Bi taybetî eva ku Tirkiyê dijayetî digel DAÎŞ'ê û alîkariya bi hevalbendiya navneteweyî re, girêdaye bi herifandina deshilata Beşar Esed û jinavbirina DAÎŞ'ê bi hev re. Ew şertê ku di rastî de ji bo hevalbendiya navneteweyî gellekî giran e.

Ji aliyekî din ve, serbarê vê ku rejîma Îranê ji hebûna deshilateke Kurdî di rojavaya Kurdistanê de aciz û nîgeran e, lê nemana Beşar Esed û bihêzbûna pêgeha opozisyona Sûriyê di Sûriye û Kurdistana Rojava de, tê wateya hiloşîna pira di navbera Îranê û girûpên terorîstî yên wekî Hizbullaha Lubnan û Hemas û ...hwd.

Lewra berjewendiyên her yek ji wan welatan di cihekî din de ye, û zehmet e ku ew pêwendî ew qas zû asayî bibin.

# Mirovên şoreşger û erkên wan di qonaxên dijwar yên xebatê de

**N: Şaroj**



"Yek ji taybetmendiyên dîroka herifîna sîstemên serberedayî û totalîter rola bingehîn ya partiyên siyasî, civaka medenî, û hemwelatiyan, di pêvajoya çaksazî û demokratîzebûna sîstemên deshilatdar û zal de ye.

Dîroka hevçerx ya Ewropaya Rojhilata şahidek e bo vê rastiyê ku, dema dewlet riya her cure danûstandinekê li ser civaka xwe dadixin, hevwelatî bixwe bi palpiştiya bingehên cîhanî yên mafên mirovan, û zanyariya li ser berpirsayetiyên vijdanî û berpirsatiya xwe, xelkê cîhanê kirine şahidê xwe, û dest kirine bi xebat û berevanî ji buhagiraniyên mirovî".

Mirov piştî pêgihîştinê, berdewam hewl daye da ku mafên xwe yên rewa bi dest bixe, ji bidestxistina yekemîn hewcehiyên jiyana xwe ve bigre heya digihîje avakirina civak û dewlet û şêwazên deshilatdariyê. Bi vê pêkê jî dîroka mirov digel xebatkirinê de hatiye girêdan.

Xebat ji bo bidetsxistina xurak û starekê ji bo berengarbûna li hemberî xwezayê, heya diyarîkirina sînorên jiyanê û hêlên sereke ji bo man di nav bazineya mirovahiyê û bidestxistina mafên bingehîn ji mafê xwendin û nivîsînê ve bigre heya digihîje mafê çarenivîsê, û beşdarîkirina di birêvebiriya welat, û deshilatdarî di herêmeke diyarîkirî ya coxrafiyayî de.

Lê bi xatircemî ve her di destpêka pêgihîştina mirovan ve, bidetsxistina van hewcehiyan, bi hêsanî bi dest nehatiye, û mirov li gorî serdem û rewşa serdeman, bi hinek astengiyên curbicur re berbirû bûye.

Ji serdema kevirîn ve ku ji bo zalbûna bi ser birsîtî û mana di nav bazineya jiyanê de, û zêdekirina nivşan, digel xwezayê de xebateke bê rawestiyan dest pê kiriye, û di encama vê xebatê de, kevir kire moma destê xwe, û yekemîn keresteyên nêçîrkirinê pê ava kir, ew pêvajoya xebatê heya gihîştina bi serdema hesin û hêdî-hêdî heya avakirina cîhana modern, û mifahwergirtin ji teknolojî û keresteyên nû yên elektironî û şandina setelaytan ji bo cihên herî dûrdest yên kehkeşanê, bo vedîtina diyardeyên nû û cihên nû, bona berdewamiya nivşên pêşiya xwe, berdewam kiriye, û îrorojê jî mirov ji xebatê nesekiniye. Lewra roj bi rojê deskevteke din ya mirovahiyê çê dibe, ku bi xatircemî ve berhema xebata mirov e ji bo berhemanîna rewş û hewayeke baştir ji bo jiyaneke serdemiyanetir.

Di vê derheqê de xebat ji bo derbazbûna ji jiyana koletiyê û avakirina pergala gundnişînî û bajarnişînî û îdarekirina welat û karûbarên civakê ji bo baştirbûna pêxwarina jiyana mirovan û hatina bi sedan û hezaran çemk û têgehên curbicur yên civakî, aborî, çandî û siyasî û ...hwd, ku pêwendiya wan bi jiyana rojane û pêşeroja mirovan û civakên mirovî ve heye, ew hemû beşek in ji pêvajoya xebata mirov bona bidesthatina hêviyên mêjdem yên wan.

Lê her wek ku me pêştir jî bas jê kir, bona gihîştina bi vê rawestgeha ku niha mirovê vê serdemê têde ye, ew qas bi hêsanî bi dest nehatiye, û mirov di pêxema gihîştina bi van hêviyan, bi sedan hezar û bi milyonan kesî qurbanî dane, bo vê ku îro rojê topa erdê cihekî aramtir be ji bo jiyanê.

Vêca di vê çarçoveyê de bi xatircemî ve, ew neteweyên ku keresteyên hewce û rewşa baş ji bo xebat û tekoşînê hebûne, baştir û bileztir gihîştine armancên xwe û di encama vê xebat û mandîbûnê de, niha xwediyê kiyan û qewareyeke siyasî û serbixwe ne, û di hinek haletan de, ji bo mifahwergirtin ji teknolojî û keresteyên hewce, bazineya deshilatdariya xwe di herêmeke diyarîkirî de nehêlane, û baskê deshilatdariya xwe kêşane bi ser sînorên erdnîgariyê de.

Her bi vê pêkê jî renge bi çendîn sedemên cuda hinek ji neteweyan nekarîbe ku li çav civakên şaristanî û pêşkevtî, bi awayekî yeksan ji bo bidesthatina maf û hêviyên xwe tekoşînê bikin, û xebatê bikin, û bigihîjin maf û daxwaziyên xwe.

Lê bê guman ew neteweyên ku xwediyê xevnên cuda bin, tu carî ji xebatê nevestiyane, û serbarê hebûna astengiyan, berdewam bûne li ser iya xebata xwe, û guman têde nine ku di encama van hewlên berdewam yên xwe de, rojekê digihîjin armancên xwe.

Lê ya ku giring e, pêdagiriya li ser vê mijarê ye ku astengî tu carî nikarin mirovê xwedî îrade û xwedî îde, ji gihîştina bi hêviyên wî bisekinîne.

Renge di qonaxeke zemanî de, bi sedema rewşa zal bi ser civaka mirovî û erdnîgariya siyasî û mirovî ya niha ya cîhanî, bi sistî û lawaziyê re berbirû bibin, lê tu carî dev ji xewnên xwe ji bo gihîştina bi jiyaneke serdemiyanetir hilnegirtine.

Her di vê çarçoveyê de, mirovê Kurd û neteweya Kurd jî, li derveyî vê xebat û tekoşînê nine, û dîroka vê neteweya mafxwarî selimandiye ku di hemû qonaxên jiyana xwe de, tenê bo bîstekê jî, dev ji xebat û berxwedan û qurbanîdan, di pêxema gihîştina bi armancên xwe hilnagire.

Lewra dema ku em rûpelên dîrokê vedidin, di hemû serdeman de, û bi taybetî di sedsala niha de, neteweya Kurd berdewam bûye li ser xebat û tekoşîn û bi taybetî di 140 salên borî de, her ku şoreşeke Kurdan di parçeyeke Kurdistanê de hatiye serkutkirin, di cihekî din, û di parçeyeke din şoreşeke din li dijî zordaran dest pê kiriye, û ew pêvajo heya niha jî berdewam e, û niha jî neteweya Kurd di her çar beşên Kurdistanê de, berdewam e li ser xebat û qurbanîdanê.

Herçend ku di vê pêxemê de bi dehan carî tûşî bêçareyî û malwêranî û koçberî, serkut, nisko, cînosayd û enfalan bûye, lê tu carî mirovê şoreşger yê Kurd her bîr ji vê jî nekiriye ku dev ji xebat û berbirûbûna li hemberî dijminên Kurd hilgire, û roj nine ku di vî warî de qurbaniyan nede, û ne zelal e ku karwana van qurbanîdanan wê heya kengê bidome? Lê ya ku diyar e, eva ye ku heya gihîştina bi mafên xwe, li ser xebat û şoreşê wê berdewam be.

Renge di qonaxekê de şoreşa wê, berbirûyê astengiyan bibe,lê tu carî bîr ji aşbetaliya heta-hetayî, tirs û

bêhêvîtiyê nekiriye, jiber ku takê şoreşger ê Kurd û partiyên siyasî û şoreşger yên Kurdistanê, û bi taybetî partiyên azadîxwaz yên Kurdistana Îranê gihane vê baweriyê ku tirs û bêhêvîtî jehra herî kûjer e, ji bo cesteyê şoreşekê ku dixwaze cîhaneke baştir û pêşerojeke geştir ji bo civaka xwe desteber bike.

Di vir de ye ku rol û erka mirovê şoreşger di qonaxên dijwar yên xebatê de, zêdetir zeq dibe, jiber ku herwekî me bas kir, gihîştina bi armancan bi bê dana nirx nebe, û her wekî şehîd Dr. Qasimlo gotiye: “Ew gelê ku azadiyê bixwaze, dibe nirxa wê jî bide”.

Eva rastiyeke haşahilnegire ku tu şoreşek bi bê astengî nagihîje encamê, û bi xatircemî ve şoreş xortên xwe qurt dike. Lewra dema ku bas ji vê dike ku takê şoreşvan sotemeniya riya xebat û tekoşînê ye, armanc ji zeqkirina vê mijarê ew e ku tu şoreşek bi bê qurbanîdan nagihîje kopka xwe.

Herwisa tu şoreşek di dîroka mirovahiyê de nebûye ku di şevekê de, û bi b ê qurbanîdan gihîştibe armanca xwe.

Di vê derheqê de gellek asayî û xwezayî ye ku li gorî guherînkariyên serdem û bihêzbûnê, dijminatî û hevpeymaniya welatên dagîrkar û zal bi ser Kurdistanê, û şoreşên Kurdan û li serveyî hemiyan şoreşa gelê me di Kurdistana Îranê de, bi lawaziyê re berbirû be, û riya gihîştina bi armancên me dirêjtir bibe, lê qet ew roj nahê ku şoreşa neteweya Kurd here nav rûpelên dîrokê de û nemîne.

Lewra di vê qonaxa hestiyar de ku qonaxeke dijwar û dîrokî ye ji bo hemû partî û rêkxirawên şoreşger ên siyasî di her çar beşên Kurdistanê û bi taybetî li Kurdistana Îranê, endamên wan partiyan wekî takek şoreşger li çav caran zêdetir xwe mandî bikin, û bi hewl û tekoşîna bê rawestiyan ya xwe, riya xebata xwe baştir bikin.

Di vê derheqê de gellek asayî ye ku şoreşger vegere ser vê rê û şopê, ku diselimîne ku şoreşger kesekî canfîda ye ku amade ye ji bo gihîştina bi armancên gelê xwe, dev ji xewnên xwe yên takekesî hilgire, û berjewendiyên gel li serveyî berjewendiyên xwe danê, û di rastî de ji bo vejiyandina agirê vê xebatê bibe sotemeniya xebat rewa ya gelê xwe.

Takê şoreşger dibe baş bizane ku hejarî û bêxewî û destkurtî û bê îmkanatî beşeke sereke ye ji taybetmendiyên şoreşê, û dibe bi hestkirina bi vê rastiya ku niha zal e bi ser herêmê de, xwe ji bo qonaxên gellek ji vê yekê dijwartir jî amade bike. Bi taybetî qonaxek ku cemserbendiya mezinhêzan li gorî berjewendiyên wan berdewam di guherînê de ye.

Ew yek bûye sedem ku berengarbûna welatên zal bi ser Kurdistanê de bi berçavgirtina vê lîstika siyasî ku niha bi ser herêm û cîhanê de zal e, li çav caran xwe dijwartir nîşan bide.

Di vê qonaxê de ye ku takê şoreşger bi têgihîştin ji riya dijwar û qonaxa dijwar ya xebata xwe, û rewşa ne baş ya zal bi ser şoreşa xwe de, di hemû warên wekî rewşa siyasî, aborî, civakî û jeopolîtîka zal bi ser herêmê de bibe pişt û penaha partî û gelê xwe, û bi xwendineke rastbînane ji vê rastiya ku astengî heya ser nînin, dibe çav li ciwaniyên cîhana takekesî û şikomendiya takekesî ya jiyana malbatî hilgire, û bi kiryar û ne bi diruşmê bi dijminên neteweya Kurd biselimîne û çeper û kûreya xebatê roj li pey rojê qahîmtir e, û tu rewşeke nebaş ya siyasî, û aborî û civakî û coxrafiyayî nikare îradeya takê şoreşger ji bo gihîştina bi armancên wê sist û lawaz bike.

Di rewşeke bi vî awayî de ye ku takê şoreşger berî vê ku di qonaxa berberekaniya di gel dijmin û dagîrkerê xaka xwe de destewyexe be, dibe bi bê tu cure demargirjiyekê digel derûna xwe de bikeve rikeberiyê, û rê nede ku tu astengiyek bibe astengî li ser riya hêvî û xwaziyên wî, û heya gihîştina bi armancên partî û gel, ji tekoşîn, canfîdayî, qurbanîdan, û çavpoşîkirina ji heza jiyana takekesî nesekine, û ji tu cure fîdakariyekê di vê pêxemê de xemsariyê neke.

# *Papa berxwedana Xiristiyan û kurdên Êzidî bilind nirxand*



**Papayê Vatîkanê, Francis berxwedana Xiristiyan û kurdên Êzidî li Îraqê li dijî rêkxistina DAÎŞ'ê bilind nirxand, û xwest cîhan roja 8'ê vê mehê ji bo Xiristiyanên Îraq û Rojhilata Navîn nimêjê bikin.**

Papa bi rêya nameyekê vîdyoyî ku di meşeke Xiristiyanan li bajarokê Enkawe li nêzîk Hewlêrê de hat xwendin, diyar kir ku Xiristiyan û kurdên Êzidî dest ji mal û milkê xwe berdan û ji warê xwe bar kirin, ji bo ku dest ji ola xwe bernedin.

Papa Francis ragihand ku ew di demeke nêzîk de nikare serdana Başûrê Kurdistanê û Îraqê bike, lê wî di serdana xwe ya vê dawiyê li Tirkiyê de jî got ku Xiristiyan ji Rojhilata Navîn têne derkirin.

Papayê Vatîkanê herwiha got, Xiristiyan û kurdên Êzidî bi taybetî, ji ber nasnameya xwe ya etnîkî û olî bûne qurbaniyên tundiya nemirovî.

Di nameya xwe ya vîdyoyî de, Papa bal kişand ku Xiristiyan û kurdên Êzidî bi zorê ji malên xwe hatine derkirin, û neçar mane dest ji her tiştî berdin, ji bo ku xwe rizgar bikin û dest ji ola xwe bernedin.

Papa Francis car din daxwaz kir ku komeke cîhanî çêbibe ji bo çareserkirina pirsgirêkên Rojhilata Navîn, û rûbirûbûna her karekî ku xelkê neçar dike ji welatê xwe bar bikin.

Herwiha di 28'ê Mijdara borî de, Rojnameya “La Repullica” ya ku li Îtalyayê tê weşandin, ragihandibû ku Papa Francis di çarçoveya serdana Tirkiyeyê de xwestibû biçe serdana penaberên Kobanê, lê dîplomatên Tirkiyeyê astengî ji wî re derxistibûn.

**Çavkanî: Rudaw**

# Nakokiyên di navbera Îran û Pakistanê, û pirsa DAÎŞ'ê



**Îdrîs Stwet**

Di mehên derbazbûyî de li ser meseleya Dewleta Îslamî li Îraq û Şam û bizavên Îslamîxwazên tundajo ên welatê Pakistanê, pêwendiyên di navbera Pakistan û Îranê ber bi alozbûnê ve çûye, û di wê midehê de her du welat çendîn car hoşdarî dane hevdu.

Îran û Pakistanê sînorek dûr û dirêj bi hev re hene, û devera sînoriya Pakistan û Îranê bi sedema hebûna partiyên xebatkar û çekdar ên deverên Sîstan û Belûçistana Îranê ku Îran wan partiyan bi terorîst nav dibe, mêj sal e ku bûye qada aloziyên ser sînorên her du welatan, û li ser wî sînorî pir car nakokî di navbera Pakistan û Îranê de çêbûye. Lê wê carê nakokiyan têhn û gorriyek zêdetir bixwe dîtiye.

Mideheke navê DAÎŞ'ê weke terorîzma cîhanî zaftir li navê Elqaide û Taliban ketiye nava medyayên cîhanî û tirs û dilkutik bo piraniya welatên cîhanê çêkiriye, û welatê Îran û Pakistan û welatên Erebî jî heya qasekî ji vê tirs û dilkutikê bêpar nine.

Rejîma Îranê deshilatdarên Pakistanê bi vê yekê tometbar dikin ku nikarin sînorên xwe biparêzin û di warê parastina sînoran kêmxem in, û Îran dibêje terorîst di nav Pakistanê ve têne nav axa Îranê, û daxwaz ji dewleta Pakistanê kirine ku pêngavên pêdivî bo ewlehiya sînorên navbera Îran û Pakistanê bavêjin, heya ku neyarên Îranê nifûzê nekene nava axa wî welatî.

Welatê Pakistanê çendîn sal e ku tevî arîşeyên girupên terorîst berbirû ye, û di van çend salên bihurî de, em şahidê çalakiyên cuda cuda ên terorîstên weke Elqaide û Taliban di wî welatî de bûyîn.

Akinciyên welatê Pakistanê %98 Misilman in, û di nava wan de %75 Sunî mezheb in, û pir bizavên Îslamî di vî welatî de hene, û hem di dema derbazbûyî de û hem jî niha binke û wargehên Elqaide û Taliban di vî welatî de heye, û pêkhatiya civakî ya vî welatî ev potansiyel heye ku alîgiriya dewleta Îslamî li Îraq û Şamê bike.



**Nakokiyên wan du welatan li ser pirsa DAÎŞ'ê weha lêhatiye ku carna şer û pevçûn li ser sînorên van du welatan rû didin, û heya niha çendîn kes hatine kuştin, û birîndar kirin, û her du welatan heya niha çendîn carî hişdarî dane hevdu. Jiber ku Îran wisa dizane ku di nava axa Pakistanê de êrîşê dikine ser sînorên wan.**

DAÎŞ'ê kariye di vî welatî de zaf kes û girûpên Îslamî ku di berê de endamên Taliban û Elqaide bûn bo aliyê xwe bikişîne. Li gorî nûçeyên rojnameyên Pakistanê, di vî welatî de hindek ji girûpên bizavên Îslamî piştevaniya xwe bo Arîkarîkirina DAÎŞ'ê ragehandiye, û nifûza DAÎŞ'ê li Pakistanê rewşa siyasî û civakî di vî welatî de tevlîhev kiriye û ji aliyekî din ve DAÎŞ dixwaze di vî welatî de banodora xwe hebe.



Di wê heyama derbazbûyî de DAÎŞ kitêbek bi zimanê Peştûyî û Ordoyî li hin deverên Pakistanê belav kiribûn, ku têde hizr û rêbaz û bîr û bawerên DAÎŞ'ê tê de hatibû baskirin.

DAÎŞ bangeşeya vê yekê dike ku 10 heya 12 hezar endamên wê hene, "Tekfîrî û Selefiyên Sunî mezheb in, û li dijî şî'eyên welatê Pakistanê ne", bixasmanî li deverên Xêyber û Pextunxah.

Ji aliyekî din desthilatdarên Pakistan û hêza leşkeriya vî welatî xwe ji bereya şer li dij terorîzm û DAÎŞ'ê dibînin. Heya niha bi awayekî fermî nifûz û bandora DAÎŞ'ê di vî welatî de nehatiye serast kirin, û wisa xuya dike ku nifûza DAÎŞ'ê di vî welatî de bi kêm hatiye girtin.

Eva di demekê de ye ku rejîma Îranê ji vê yekê ditirse ku DAÎŞ bikaribe bandorê danête ser girûpên çekdarên Sîstan û Belûçistanê, û heke li Îraq û Sûriyê lawaz bû û hevkêşeyên siyasî hatin guhertin, lûleyên tifingên DAÎŞ'ê bi piştgirêdan bi çekdarên dijberê rejîma Îranê bi kar bînin.

Nakokiyên wan du welatan li ser pirsa DAÎŞ'ê weha lêhatiye ku carna şer û pevçûn li ser sînorên van du welatan rû didin, û heya niha çendîn kes hatine kuştin, û birîndar kirin, û her du welatan heya niha çendîn carî hişdarî dayne hevdu. Ji ber ku Îran wisa dizane ku di nava axa Pakistanê de êrîşê dikine ser sînorên wan.

Lê di hember de desthilatdarên Pakistanê dibêjin ku aloziyên ser sînorên Pakistan û Îranê, û ew êrîşên ku bo ser hêzên leşkerî ên Îranê têne kirin, hemû di nava axa Îranê de rû didin, û Pakistanê hişdarî daye Îranê ku heke carek din êrîşê bikine ser sînorparêzên Pakistanê, dê tevî dijkiryarên hêzên leşkerî ên Pakistanê berbirû bibin.

# Berdewamiya bêrêzî û sivikatiya pilandarêtî ya li dijî neteweya Kurd li Îranê



**Arif Vêlzî**




Dîroka pirr ji evrazû nişva gelê Kurd serbarê girtin û kuştin û ketine pey ya dagîrkarên Kurdistan, her tim tejî bûye ji xebat û qurbanîdanê.

Hekî em gellek paşve venegrin, û her ji sedsala borî ve li vê dîrokê binêrin, em dibînin ku rast e, li her çar beşên Kurdistanê de, hevdem çar dewletên dagîrkar û xwediyê cîhanbîniya curbicur û carna dij bi hev, ku hertim kêşe û nakokiyeke zaf di navbera wan de hebûye, lê ew xala ku ne tenê ciyê nakokiyê di navbera wan de nebûye, û hertim xala li hevdu nêzîkkirina van çar dewletan bûye, pirsa neteweya Kurd bûye.

Her di vê rastyê de, û bo kêmkirina nifûsê, berevajînîşandana dîrokê, helandina şûnasa neteweyî, û helandina ferhengî ya gelê Kurd, wan çar dewletan dev ji tu helwke şovînî bernedane, û bi awayekî sîstematîk û di demên curbicur de, dest bi girtin û qirkirina vê neteweya hejar û bê deretan kirine.

Mînaka herî berçav ya van hewlan eva ye ku xeynî komkujî û kîmyabaran û enfal û jînosayda gelê Kurd bi armanca jinavbirina şûnasa neteweyî û kêmkirina nifûsa vê neteweyê, koçpêkirina bi zorî di her çar beşên Kurdistanê ku di Kurdistana Başûr û Rojava bi siyaseta Te'rîb, û di Kurdistana Rojhilat bi dûrxistina Kurdan bo cihên curbicur wekî Xurasan û herêmên din ên Îranê, û herwisa dûrxistina Kurdên Kurdistana Bakûr bo cihên curbicur ên Tirkiyê û heya derveyî sînorên vî welatî hatiye kirin, hewleke din ya metirsîdar e ji bo guherêna demografiyay Kurdistanê.

Welatên dagîrker ên Kuyrdistanê û serveyî hemiya Komara Kurdistana Îranê ku niha bi ser Kurdistana Îranê de deshilatdariyê dikin, yek ji wan welatan e ku bi dîroka hatina ser kar ya xwe gelek hovane dijayetiya gelê Kurd kiriye, û serbarê girtin û kuştin û teror û toqandina Kurdan di Îranê de, wekî stratejiya dirêjheyam û bi awayekî micid hewla helandina Kurdan di warê çandî û dîrokî bi awayekî yekcarî daye.

Deshilata nawendxwaz ya Komara Îslamiya Îranê ji bo birêvebirina vê siyaseta dijî mirovî ya xwe di raserî Îranê de û sepandina çand û kutur û zimanê neteweya Fars nawendên perwerdehî û hînkirinê ya zarokan û herwisa rêkxirawên ser bi dezgehên ewlekariyê û ji hemiyan giringtir kanalên parêzgehan yên radyo û televîzyonan, û bi dehan metodên din girtine pêşiya xwe, da ku piroseya helandina neteweyên Îranê bigehîne armanca xwe.

Hekî em jê hûr bin, em dibînin ku her di dema hilbijartinan de, û bi taybetî dawî hilbijartina serkomariyê di Îranê de, di pêvajoya bangeşeya hilbijartina de, Hesen Rûhanî muhreyê destnîşankirî ê rejîmê qewl û soza damezrandina Ferhengistana Kurdî li Kirmaşan, û Ferhengistana Tirkî li Tewrêzê, û gellek sozên din dane gelên Îranê, û mixabin eva jî bû sedema vê ku hinek xelkê sade piştevaniyê ji wan bi nav hilbijartinên rejîmê bikin, lê piştre eşkere bû ku eva tenê taktîka hilbijartinê bo komkirina dengan, û piştre jî tewahiya qewl û soz hatin jibîrkirin, û cardin dest kirin bi siyaseta sivikatiya çandî ya gelên Îranê, û li serveyî hemiyan gelê Kurd.

Siyaseta herî nû ya Komara Îslamiya Îranê di vê derheqê de, di çend rojên borî de xwe derxist û me dît ku çend caran serbarê bê hurmetîkirin bi kesayetî û hêma û pîroziyên neteweya kurd bi hemû awayekî û ji riya nawendên ewlekariyê ve, rêgirî ji her cure çalakiyeke kulturî û çandî û neteweyî di Kurdistanê de tê kirin.

Mînaka herî berçav ya van êrîş û bê hurmetiyan, nawendên deng û rengê Mehabad û Îlamê bûn ku ji riya rapirsiyeke armancdar ya deng û rengê Mehabadê, hunermendê mezin yê gelê Kurd Hesen Zîrek bi du stranbêjên Farsziman re xistin pêşberî hevdu, ku vê yekê jî bêzarî û girevgirtina xelkê herêmê li pey xwe hebû. Ji aliyekî din ve nawenda deng û reng ya Îlamê bû ku di şanoyekê de bi awayekî berfîreh bê hurmetî bi ziman û kinc û çanda dewlemend ya Kurd kir, ku yek ji çandên herî dewlemend yên herêmê ye.

Ya eva ku malperên înternêtî yên ser bi rejîmê di çend rojên borî de bi awayê sîstematîk li ser torên civakî êrîş kirin ser pîroziyên Kurdên peyrewê ayîna Yarsan, ya eva ku di Kirmaşanê de rêgirî ji çalakiya ferhengî ya çend çalakan kirin ku bi alîkariya xelkê herêmê dixwastin hewla komkirina peyv û çîrok û pendên pêşînan di vê herêmê de bidin û ji metirsiya jinavçûnê wan peyvan rizgar bikin.

Lewra bi berçavgirtina rewşa ewlehî û mîlîtarîzekirî ya Kirdistanê, û herwisa nebûn û nedana derfeta vegeşîna çandî, û kulturî bi xelkê Kurdistanê û hevdem hewldan bo sivikatiya çandî,neteweyî û ayînî ya gelê Kurd, ew erka dîrokî dikeve ser milê çalakên çandî û civakî di navxwe de, û partiyên siyasî û neteweyî ên vê para Kurdistanê ku bi hewlên bê rawestiyan yên  xwe ji riya medya û torên civakî û heya ji riya rasterast ve, destpêkê de hewla pûçkirin û nezokkirina siyasetên şovînî yên Komara Îslamiya Îranî bidin, û piştre jî di pêxema li ser pê ragirtina çand û kultuira neteweya Kurd li ser hewl û tekoşînan berdewam da bin.

# Nerîna Lîderan



Nêçîrvan Barzanî:

**“Pêşmerge xwe nake qurbanî, ji bo azadkirina Mûsilê”.**



Demîrtaş:

**“Me girteyên vîdyoyî hene, ku êrîşa DAÎŞ’ê ji xaka Tirkiyê ve bo ser Kobanê nîşan didin”.**



Pap Firansîs:

**“Rêberên Misilmanan, dibe terorîzmê şermezar bikin”.**



Elî Ekber Wilayetî:

**“Neteweyên Yekgirtî dibe ku piştgirên terorîstan û DAÎŞ’ê di herêmê de bide nasandin”.**

# Pêvajoya çareseriyê

Piştî êrîşa DAÎŞ’ê bo ser Kobanê, û bê helwêstiya Tirkiyê di vê derheqê de, gelê Kurd di Kurdistana bakûr de, dest bi meşên nerazîbûnê kirin, û di encamê de çendîn kes hatin kuştin, Qendîlê jî ragehand ku hekî Tirkiye her bi vî awayî bê helwest bimîne, eva tê vê wateyê ku piştgirê DAÎŞ’ê ye, lewra tiştek bi navê pêvajoya çareseriyê, û agirbesê namîne, lê serbarê vê helwesta Qendîlê, Ocalan vê carê jî xwast ku pêvajo zirarê nebîne, û reşnûsek li derheq pêvajoya çareseriyê de amade kir, û piştî serdana şanda HDP’ê, radestî vê şande kir, da ku ew şand vê reşnûsê bide dewleta Tirkiyê, ku li gorî zanyariyan Ocalan pênc meh derfet dane Tirkiye û Qendîlê, da ku bi hev re li ser vê reşnûsê li hev bikin.

Herwisa bas ji vê tê kirin ku bo yekem car, wê şandeke dewleta Tirkiyê jî serdana Qendîlê bike, da ku bi awayekî rasterast bi wan re li ser mafê Kurdan û danîna çekan û vegera wan ya bo nav Tirkiyê, danûstandinê bikin.

Lê hinek ji kesayetiyên siyasî li ser vê baweriyê ne ku hikûmet dixwaze “pirsa PKK’ê”, ne “pirsa Kurd” çareser bike, lewra zêde bas ji danîna çekê ji aliyê wan ve, û vegeriyana wan bo nav welat de dike, bona vê ku bi vî awayî vê metirsiya mezin li ser xwe hilîne, û bi vî awyaî bi dana kêmtirîn mafî bi Kurdan, pêvajoya çareseriyê di berjewendiya deshilata xwe de bigehîne encamê.

Bo mînak di vî warî de serokê giştî yê HAK-PAR’ê Fehmî Demir diyar kir ku tu pirojeyên hikûmetê di derbarê pêvajoyê de tuneye, û wiha got: “Pirojeya hikûmetê piranî li ser çekdanînê ye.

Di pişt perdê de, çi dibe em nizanin, lê çareserî dana mafên kurdan e. Lê hikûmetê ji bo mafên Kurdan tu gav neavêtine.”

Serokê giştî yê KADEP’ê Lutfî Baksî jî got: “Hikûmet dixwaze kurdan mijûl bike. Rawestandina şer baş e, lê hêviya me bi pêvajoya çareseriyê nemaye, jiber ku tu nexşeriyeke hikûmetê tuneye.”

Serokê giştî yê PAK’ê Mistafa Ozçelik jî got: “Divê hikûmet heyîna kurdan di çarçoveya destûra bingehîn de bipejirîne.



Divê rê li ber kesên ku di girtîgehê de, û li ser çiya ne, bê vekerin, da ku vegerin malên xwe û bikarin siyasetê jî bikin. Gotina “Çekan danên, emê mafên we bidin”, eva sivikatiya bi kurdan e.

Tişta ku dewlet ji çareseriyê fêm dike, çekdanîna PKK’ê ye.”

Bê guman her ji boçûnên wan kesayetiyan re eşkere dibe, ku astengiyên li se riya pêvajoya aştiyê pirr in, û heya gihîştina bi çareseriyeke rasteqîne riyeke dûr û dirêj li pêşiya aliyên danûstandinkar de heye, herçend ku Davûdoxolo ragehandiye ku berî hilbijartina di Tirkiyê de emê pêvajoya çareseriyê bigehînin encamê.

Bêguman hêviya hemû alîgirên wekhevî, û ewlehî û aramiyê di herêmê de, eva ye ku hikûmeta Tirkiyê wekî karbidest û deshilatdarên berê, gotûbêjan ji bo serkutkirina şoreşa Kurd bi kar nehîne, jiber ku ne deshilatdarên berê karîn bi serkutkirina hinek ji şoreşên Kurdan, dawiyê bi şoreşa û xebata rewa ya Kurdistanê bînin, û ne jî Kurd di serdema niha de, ew qas lawaz û bê piştevan in, ku ew bikarin bi siyaseta xapandin û serkutê dawiyê bi şoreş û xebata wan bînin.

Şehab Xalidî

Niha tenê çiya pişta Kurd nînin, êdî niha cîhana derve Kurdan wekî hêzeke aştîxwaz û di heman demê de pêşengê xebata li dijî zordarî û terorê dibînin, û pişta Kurd digrin, lewra tenê riya vegerandina ewlehiyê bo Tirkiyê, ew e ku hewldan bo çareseriya pirsa Kurd, bibe piroje yasayek di çarçoveya yasaya bingehîn de, û tu partî û aliyekî siyasî nekare li gorî berjewendiyên xwe pirsa Kurd pênase bike, ku çareseriya pirsa Kurd, hem di berjewendiya Tirk û Kurd û hem jî di berjewendiya hemû pêkhateyên din di Tirkiyê de ye.





**Birêz Mîro Elyar kurê Reşîd sala 1954 (13.02.1333)'an, li gundê "Naçît" a ser bi bajarê Bokanê û di malbatek naskirî de tê dinê.**



Dr. Şerefkendî û Nesrîn Qasimlo û Mîro Elyar

**"Roja 22'ê Pûşpera sala 1368'an (1989) em li pêtextê Nemsayê û li bajarê Viyenê bûn. Dema xwarina şîvê bû û me di malekê de çavnihêriya Dr. Qasimlo dikir, ji nişkê ve televizyonê nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo belav kir. Di rastî de ew roj, roja herî nexweş a jiyana min ya siyasî ye û tu carî nahê jibîrkirin".**

**H: Arif Vêlzî**

Birêz Mîro Elyar jî weke tewahiya zarokên din ên Kurdistanê temenê zarokatiya xwe di gundê xwe de derbaz dike û di dema xwe de diçe xwendingehê û dest diavêje xwendinê. Qonaxên xwendina xwe yek li dû yekê bi serkevtin ve derbaz dike û piştre dîploma xwe werdigire û di "Sipaha Daniş" a wî çaxî de mijûlî kar dibe.

Birêz Mîro Elyar li derheq bersiva pirsyara Agirî de, ku gelo çawa bi PDKÎ re nasyar bû, weha dibêje: "Di malbata me de û di dema zarokatiya min de, gellek caran basa tevgera Kurdî û PDKÎ dikirin, lewra berî şoreşa gelên Îranê, navê PDKÎ bo min navekî naskirî bû û min kêm û zor hindek zanyarî li ser wê hebûn. Lê di rastî de min hevdem tevî şoreşa gelên Îranê û di 1979 (1357)'an de, PDKÎ bi başî û bi tewahî nas kir".

Birêz Mîro Elyar herweha çawaniya tevlîbûna xwe tevî refên pêşmergên PDKÎ weha dixe ber bas: "Sala 1979 (1357)'an û di dema şoreşa gelan û aloziyên hundirîn ên Îranê de, tevî kurmam û hevalê xwe birêz Tahir Elyar, me biryar da ku em tevlî rêzên PDKÎ bin.

Em bûn endamê PDKÎ û piştî salekê û di sala 1979 (1358)'an de bi fermî me çeka şerefa pêşmergatiyê kire milê xwe".

Birêz Mîro Elyar rojên herî xweş ên jiyana xwe weha tîne ziman: "Ez yek ji wan pêşmergên PDKÎ bûm ku di dala 1982 (1361)'an de ji aliyê PDKÎ ve bona xwendinê bo Ewrûpayê hatime şandin.

Dema min xwendina xwe bi dawî anî, û bawerînameya xwe wergirt, min hest bi vê yekê kir ku min erk û rasipardeyek ji xebat û partiya xwe bi serkevtin ve bidawî anî, lewra keyfa min pir hat. Jiber ku ez xwendinê, û herwisa xizmeta bi PDKÎ, weke parek ji xebata pêşmergatiyê dizanim.

Jiber vê yekê rojên bidawîhatina xwendina min, rojên her xweş û pir wate yên jiyana pêşmergatiya min bûn".
Birêz Mîro Elyar herweha roja herî nexweşa ya jiyana pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: "Roja 22'ê Pûşpera sala 1368'an (1989) em li pêtextê Nemsayê û li bajarê Viyenê bûn.

Dema xwarina şîvê bû û me di malekê de çavnihêriya Dr. Qaimlo dikir, ji nişkê ve televizyonê nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo belav kir. Di rastî de ew roj, roja herî nexweş a jiyana min ya siyasî ye û tu carî nahê jibîrkirin".

Birêz Elyar derheq jiyana xwe ya hevpar dibêje: "Sala 2004 (1383)'an, li bajarê Viyenê û li mala hevalekî, min û xêzana xwe Fexrî, hevdu dît û piştî bi hevdu razîbûn û rêkevtina di navbera xwe de, roja 19'ê xezelwera heman salî û li heman bajarî me jiyana xwe ya hevpar ava kir, û heya niha jî bi germ û gurrî ve, em li jiyana xwe berdewam in".

Birêz Mîro Elyar di peyamekê de bo xelkê Kurdistanê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Ez ji xelkê Kurdistanê re dibêjim ku, her kesek bona azadî û serbestiyê xebat û tekoşînê dike, hertim serbilind e.

Ji wê demê ve ku ez hatim nava refên pêşmergên PDKÎ, heya niha tenê yek deqeyê jî min hest bi poşmanbûnê nekiriye, lewra serbarê şanazî û serbilindiyê, dibêjim ku pişikdariya di xebat û berxwedana ji bo azadî û serbestiyê, erka li ser milê her Kurdekî niştimanperwer e".



# Armanc ji nehêlana saziyên civakî di Îranê de çi ye?



**Şemal Texrîbî**



Yek ji cudahiyên bingehîn yên nizameke xelkserdest û demokratîk li çav sîstemên dijî xelkî hebûna saziyên civakî ye ku bi sedema beşdariya hemû takên civakê bi bê berçavgirtina pîşe û kar û tex û qat, wekî çavkaniyeke giring ji bo sermayeya civakî bi kar tê.
Ew nawend û saziyên nav civakê ku ketine navbera hikûmet û hevwelatiyan de, pêk tê ji saziyên civakî. Bi giştî ew saziyên civakî çend armancên sereke dipêkin:

1-Bihêzkirin û jêhelbirina asta şûnasa neteweyî.
2-Asankarî ji bo vedîtina şûnasa civakî
3-Hewldan ji bo lihevnêzîkkirina qatên civakî.
4-Anîna komek ji hewcehî û çavnihêriyên ferhengî yên pîşeyî û civakî
5-Jêhelbirina asta rola endaman ji bo vedîtina takekesî.

Ku wisa bû hebûna saziyên bi vî rengî, bi vê sedemê ve ku ji bo armancên diyarîkirî têne avakirin, û dikarin hêzên mirovî (sermayeyên civakî) di çarçoveyeke diyarîkirî de rêk bixib, dikarin ji bo pêşxistina civakê di warê siyasî, civakî, aborî, ferhengî û zanistî bi qazanc bin.

Ji aliyekî din ve, bandora van saziyên civakî di warê siyasî de, û ji bo guherîn yan pêkanîna guhertina di nav hikûmetê de cihê jêhûrbûnê ye, û gelek şarezayên vî warî bûyerên sala 2011’an ya Rojhilata Navîn û pirsa Buhara Erebî bi van aliyan ve girê didin.

Bi gotineke din serhildana nerizayetiyan di Mîsr û Lîbî û Tûnisê, û guherîna sîstemên siyasî di wan welatan de, û pêkhatina guherînkariyan di welatên Erebî ên Kendavê, beşek in ji encamên bandora saziyên ne hikûmî.
Rewşa saziyên civakî di Îranê de:
Civaka Îrana li jêr deshilata Komara Îslamiya Îranê de, niha hilgirê pirojeyeke kal û ne tewaw ji saziyên civakî ye.

Serbarê jêhelçûna hejmara rûniştvanên bajarakincî, jêhelçûna asta xwendewariyê, jêhelçûna asta xwendekaran, bi pîşeyîbûna zêdetir ya aboriyê û kêmbûna beşa kiştûkalê ji aboriyê, û geşekirina jêrxana aborî û civakî, ku sercem derfet ji bo gihîştinja bi cîhaneke nû û modern ji bo Îranê xweş kirine, lê hêşta civaka Îranmê nekariye ku hikûmeteke demokratîk biceribîne, yan aliyê kêm mafên medenî û yên hevwelatîbûnmê ji hevwelatiyên xwe re dabîn bike.

Mixabin saziyên civakî niha di Îranê, wekî yek ji armancên rejîma Tehranê têne hesibandin ku berdewam dikevin ber êrîşên hovane, û bi girtin û lêdan û îdama çalakên vî warî, yan jî daxistina van binyatan, pêşiya çalakiyên xelkê digre.

Xeynî vê yekê jî rejîm berdewam hewl dide ku rêkxirawên bi vî rengî yên ne hikûmetî, bikêşe bin siya xwe de, da ku li gorî daxwaziya wê, ew binyat çalakiyan bikin.

Bo mînak di demekê de, ku tenê 197 civatên zanistî û 136 nawendên aborî, û 5 hezar nawendên kedkarî di Îranê de hene, û li hemberî vê de, 52 hezar nawendên olî û 8 hezar civatên bi nav xêrxwazî hatine avakiirn.

Eşkere ye ku li gorî biryar û çavdêriya binyatên piropagendeyî û leşkerî û emniyetiyê, yên rejîmê de kar dikin, lewra nabe em çavnihêrê geşekirina sermayeyên civakî yên civaka Îranê bin.

Bi giştî bihêzbûna civaka medenî, hewcehî bi pêdaçûna yasayan û nehêlana yasa û rêsayên Komara Îslamî heye, ku azadiyên takekesî û civakî sînordar kiriye, heye.

Hevdem formgirtina beşa taybetî, azadiya zanistî, vegeşîna pêvajoya gehandina zanyariyan û karê medyayî, dikarin di vê rastayê de bandoreke baş hebin.

Lê hekî ew pêşmerc nehêne cîbicîkirin, dîtingeha gulxaneyî ya NGO’yan û saziyên civakî, wê rastî heman çarenûsî bên, ku heya niha me dîtine. Herçend ku civaka medenî ya Îranê niha bi lawazî heye, lê wekî deb û nerîta carr ya di nav nizamên dîktator , di bin çermê bajaran de jiyana xwe didomîne.

Ku wisa bû heya wê demê ku kereste û emrazên serkutkirinê bi awayekî asayî di destên desthilatdarên niha de be, em nikarin çavnihêrê vê yekê bin ku girûpên civakî û saziyên civakî, roleke çalak hebin.



# Gotinên Navdaran



**A: Firat Cewerî**

Şik, ji bêhêvîtiyê jî xerabtir e.

**Sirjohn Denham**

Ji bo em baweriya xwe bi tiştekî bînin, divê em bi şikî dest pê bikin.

**Stanislaus**

Makîne namirin, lê peyayên serî-makîne dimirin.

**Gerald Stanley Lee**

Min ev name ji ya hertim, dirêjtir nivîsand, ji ber ku wextê min û nivîsandina kurtenameyan tune ye.

**Pascal**

Bi tenê tiştek ne di destên mirov de ye, ew jî îdarekirina demsalan e.

**Lowel**

Bihar keçek ciwan, havîn dayikek, payiz jinebiyek, zivistan jî dêmariyek e.

**Gotineke Poloniyan**

Di bin sazûmaneke stemkar de, mîzah dibe zanist.

**O. Beer**

Ji bo kesan şik çi be, ji bo parlemento jî muxalefêt ew e.

**Anonim**

## Biçûktirîn derhênera kurd karê "mezin" dike!

**Lîstikvana ciwan a kurd Ejîn Cotiyar, ku heya niha tenê di fîlman de hunera xwe nîşan dida vê carê milê ji bo çêkirina fîlmekê vemalt û wek "biçûktirîn" derhênera kurd navê xwe di sînemaya kurdî de tomar kir.**

Ejînê ji Rûdawê re got ku wê dema xwestiye derhênertiyê bike xwestiye tiştekî cuda ji fîlmên din ên kurdî çêbike lewma jiyana qumarbazan û bandora qumarê li ser malbatan hatiye hişê wê.

Li gorî gotina Ejînê, di nav kurdan de hinek malbat ji ber qumarê ji hev belav bûne.

Derhênera kurd anî ziman ku ew dixwaze bi fîlma xwe beşdarî festîvalên hundir û derveyî Kurdistatnê bibe.

Ejîn sala 1988'an li bajarê Silêmaniyê ji dayîk bûye û bavê wê jî derhênertiyê dike.

Rûdaw



## Dilber bi 8 zimanan stranan dibêje

**Hunermend Dilber Doskî straneke bi heşt zimanan amade dike.**

Dilberê li ser vê strana xwe ji Rûdawê re got: "Ev stran ji stranên min ên berê cuda ye. Ezê bi 8 zimanan vê stranê bêjim. Ez dixwazim peyama aştî û biratiyê bi riya strana xwe bigihînim tewahiya cîhanê."

Dilber Doskî hem stranbêje e û hem jî wek aktor beşdarî çend fîlman bûye.

Dilberê herwiha li Bakurê Kurdistanê di çend kanalên televizyonî de wekî pêşkêşvan kar kiriye.



## Nivîskar Dilsoz ji dengbêjekî kor fêrî kurdî bû

**Nivîskarê kurd Omer Dilsoz got ew ji dengbêjekî kor ferî nivîsandina kurdî bûye.**

Nivîskar Dilsoz ragihand ku wî kurdî ji dengbêjê kurd Xalê Evdulqadir Kizilkaya girtiye, û got "Xalê Evdulqadir ji bo min çavkaniya herî girîng bû. Fêrzanê kurd Kizilkaya, ez ferî dîrok û kevneşopiya kurdan kirim. Ew ji bo min wekî mamostayekî bû."

Dilsoz ji Rûdawê re diyar kir ku masmoteyê wî yê dibistanê hertim bizav dida zimanê kurdî û ew yek jî, ji bo wî bû sedem ku berê xwe bide zimanê kurdî û wiha got:

"Dema ku wî dest bi nivîsandina kurdî kir, wê serdemê kurdî qedexê bû, lê wî ti cara gav paşve ne avêt, û her roja paştir hezkirina wî ya kurdî zêdetir dibû".

Omer Dilsoz li Colemêrge ji dayik bûye. Romana wî ya bi navê Hewrazên Çiyan ji beriya çend rojan hat çapkirin.



# Zimanê Kurdî



## Beşa 7. Dema guhdarîkirin û xwendinê

### Jîngeha min



**Dildar:** Mala me li Diyarbekirê ye. Em li taxa Peyasê rûdinin.
**Mirza:** Mala me jî li gundê Xanê ye.
**Dildar:** Li hemberî mala me parkek heye.
**Mirza:** Li hemberî mala me jî çemek heye.
**Dildar:** Li bajarê me milyonek mirov dijîn.
**Mirza:** Li gundê me sê sed mirov dijîn.
**Dildar:** Bavê min mamoste ye, li xwendingeha navîn dixebite.
**Mirza:** Bavê min jî cotkar e û karê çandiniyê dike.
**Dildar:** Em di avahiyeke heftqatî de dijîn, mala me di qata şeşan de ye.
**Mirza:** Xaniyê me du qat e, di nava baxçeyekî fireh de ye û di baxçeyê me de jî hewzeke mezin heye.
**Dildar:** Xwezî mala me jî li gund bûya!
**Mirza:** Tu dixwazî vê havînê bêyî gundê me?
**Dildar:** Belê, ez dê gelek kêfxweş bibim.
**Mirza:** Ser çavan were, ez jî dê bi hatina te kêfxweş bibim.










# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Cêwîn e li kêlek in, ne goşt in, lê nermik in,
ev çiye dê fêm bikin ?
- Sênîka val, tejî hingivînê tal.
Sêniya wale, pir le hengowînî tal e.
- Tiştekî min heye tiştonek.dunya hemû têdeye.

**Guh**

2- Du Golê reş û hişîn, li ser bejna şan û şîn.
- Du pencerên bê derî, bi şev girtî, bi roj vekirî.
- Sipiye wek şîrî, reşe wek qîrî, tîje wek şîrî
- Çendî bideyê têr nabit. (* çav, meqes, nefs)
- Odek şûştî muştî, cotek qazî têde runiştî.
- Kaniya qinê qinê, mîr û hekîm jî dest didinê.
(* Bo difnê jî têt.)
- Wî lay pêjan, vî lay pêjan, di nav da morî û mercan.
- Hînî û mînî, ya li bin kûnî, ez yê dibînim, tu nabînî.
- Hêlîna şimfarê, ya li nîveka du guliyêt darê, ne li berojî, ne li nizarê.
- Wek stêrikan diçûske, deriyê wê wek birûsk e, li ser
dileqe birû û bisk e, kî ker nebe wê nasdike!!
- Ne kend e ne lend e, bi kendê ve bend e, bizane çiye û
çend e?

**Çav**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (243)


## Gelo dizanin ku jin zêdetir tûşî nesaxiya Xemokiyê dibe?



**Di lêkolînek zanistî de ku di malpera BBC'yê de hatiye belavkirin, eşkere bûye ku bi sedema zexta zêdetir a karkirinê, jin pitir ji mêran tûşî nesaxiyên derûnî û xemokiyê dibin.**

Di lêkolînê de ku 2800 jin û mêrên nawencî ji xwe digire, hatiye eşkerekirin ku, nîşanên xemokiyê zêdetir li ser jinan xwe derdixe û piraniya wan jî di dema pêgeha herî bilind a deshilatdariya wan di karên xwe de tûşî vê nesaxiyê dibin.

Eva di demekê de ye ku her ligorî vê lêkolînê, dema ku mêr di heman pêgehê de ne û deshilata wergirtina karsazekê hene û yan jî baravajî daxwaza bicih hêlana kar ji karsazeke xwe dikin, kêmtir tûşî xemokiyê dibin.

## Li Îranê nan %30 giran bû



**Berdevkê dewleta Komara îslamî ya Îranê ragehand ku, hikumetê tu biryarek bona girankirina buhaya nan nedaye, lê nanewaxane dikarin heya %30 buhaya nan giran bikin.**

Di raporekê de nûçegehaniya kar di Îranê de ragehand ku "piroje yasaya çaksaziya pêvajoya berhemanîn û derxistina ar û nan", ji roja 10.09.1393'an vê, wê here qonaxa cîbicî kirinê.

Ligorî piroje yasaya navbirî, serbarê baştirkirina çavaniya nan di Îranê de, buhaya nan bi hevkariya ostandar û fermandaran ve wê bê çaksazîkirin.

Lewra ji niha şûnde buhaya nan li seranserî Îranê wê bi vî awayî be:
Nanê Taftûn ji 300 Tûmenî wê bibe 390 Tûmen
Nanê Berberî ji 500 Tûmenî wê bibe 650 Tûmen
Nanê Sengek ji 600 Tûmenî wê bibe 780 Tûmen
Nanê Lewaş ji 160 Tûmenî wê bibe 208 Tûmen

## Sê ji sedê ji xelkê Siwîsê, se û pişîkan dixon



**Civata piştevanî ji ajelan li Siwîsê ragehand ku, 250 hezar Siwîsî ku %3 ji heşîmeta xelkê wî welatî pêk tînin, bi awayek berdewam rojane goştê se û pişîkan dixon.**

Tamî Tomk serokê civata navbirî di hevpeyvînekê de tevî nûçegehaniya Firansayê ragehand ku, bi giştî û bitaybetî di rojên Kirîsmesê de, xelkê welatê wî û zêdetir herêmên Bêrn, Yora û Loransê, goştê pişîkê bi kar tînin, û dixwaze ku di pêşerojê de rê ji vî karî bigire.

Eva di demekê de ye ku berdevkê serokê îdareya kontrolkirina xwarinan derheq bi gotinên Tomî Tomk eşkere kir ku, "Ez nizanim ka gelo amara han ji kuderêhatiye, lê xatircem im ku amara han nawenda me nedaye û, herweha di welatê me de edetek bi navê xwarina goştê ajelên xomalî, nabînim".

## Orkestraya Kurdistanê diçe Romanyayê



**Li ser vexwendina balyozê Îraqê li Romanyayê, orkestraya Kurdistanê konsêrteke mezin a muzîka kurdî û cîhanî li Romanyayê saz dike.**

Serokê orkestraya Kurdistanê Heval Hemed ji Rûdawê re ragihand: "Biryar e di demeke pirr nêzîk de orkestraya Kurdistanê serdana Romanyayê bike û çend parçeyên muzîkê û stranên kurdî û cîhanî li wir pêşkêş bike."

Heval herwiha got: "Di vê konsêrtê de emê du stranên nû ku li ser pêşmerge hatine gotin, li Romanyayê pêşkêş bikin. Lê berî em herin Romanyayê, bi du rojan, emê konsêrtekê li Hewlêrê jî saz bikin."